*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd*
*di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (240) 23-10-2014 Buha (150) Tûmen

## Çavên cîhanê li ser meşa dîrokî ya pêşmerge ye



**Parlamentoya Kurdistanê di rûniştina xwe ya 22.10.2014'an de, biryara şandina Hêzên Pêşmerge bo bajarê Kobanê gotûbêj kir, û piştre ew biryar pejirand.**

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî nameyek ji parlamentoya Kurdistanê re şandibû, û tê de daxwaza razîbûnê ji parlamentoyê kir bo şandina Hêzên Pêşmerge bo bajarê Kobanê.

Parlamentoya Kurdistanê bi amadebûna Wezîrê Pêşmerge Mistefa Seyd Qadir biryar da ku Hezên Peşmergeyên Kurdistanê bişîne Kobanê.

Ew biryara parlementoya Kurdistanê bû sedema kêfxweşiya Kurdan li her derê, bi taybetî Kurdên Rojavaya Kurdistanê.

Di rastî de ew kêfxweşiya Kurdan jî bi kêfxweşiya wan ya derheq lihevkirina ENKS û TEVDEM'ê ve zêde bû. Niryar e ku şandina pêşmergeyan bo Kobanê bi çekên giran ve be, û ew pêşmerge wê di bin çavdêriya Wezareta Pêşmerge de bin.

## DAÎŞ'ê çekên Kîmyayî bi kar anîne



**Ev çend roj in ku îdiayên wiha belav dibin ku DAÎŞ'ê çekên kîmyewî li Kobanê li hemberî xelkê Kobanê, û şervanên YPG'ê de bi kar anîne.**

Bijîşkê bi navê Welat Omer ji rojnameya almanî ya bi navê "BILD" re axivî û diyar kir ku wî çend kes derman kirin, ku li gor dîtina wî, ew çend kes bi çekên kîmyewî birîndar bûne.

## Daxûyaniya PDKÎ bi boneya birêveçûna 8'emîn pilînoma Komîteya Nawendî

R: 2

*Birêz Mistefa Hicrî:*



***"Di van civînên hevpar yên partiyên Rojhilata Kurdistanê de, çi cihek bo PJAK'ê tuneye".***

3

*Birêz Mihemed Nezîf Qadirî:*



***"Giringîdan bi xebata medenî û cemawerî ji aliyê partiyên Rojhilata Kurdistanê ve berdewam e...".***

5

*Birêz Teymûr Mistefayî:*



***"Eva ku carna ji zimanê hinek kesan ve em dibihîzin ku şoreş di Rojhilata Kurdistanê de sekiniye...".***

7

***Fîlma "Çi"...***



6

***Roja cîhanî ya nûciwan***



9

## Sergotar

## *Rejîma Îranê, hovtir ji DAÎŞ'ê*

Şehab Xalidî

Îro rojê bi sedema pêşkevtina teknolojiyê, û hebûna torên civakî ên înternetî, û hebûna bi hezaran torên mahwareyî, cinayetên DAÎŞ'ê di tewahiya cîhanê de deng vedane.

Lewra xelkê cîhanê û dewletên cîhanê dizanin ku ew ne tenê bi girûpeke terorîstî re, belkû bi dewleteke terorîstî bi navê "Dewleta Îslamî li Îraq û Şamê" re berbirû ne, û dikare gefek micid û pirr metirsîdar be ji tewahiya cîhanê re. Lewra hevalbendiya li dijî wan roj bi rojê bi hêztir dibe, û kîn û nefreta ji wan jî, roj bi rojê bi gurrtir dibe.

Lê nabe ji bîra ti kesî here, ku ji DAÎŞ'ê hovtir û metirsîdartir di cîhanê de, rejîma Komara Îslamiya Îranê ye. Lewra em dibêjin hovtir, ji ber ku kar û kiryarên wan yên hovane ji yên DAÎŞ'ê kêmtir nebûne. Vê rejîmê di destpêka deshilatdariya xwe de, wek hovan êrîşî ser Kurdistanê kir, û bi hezaran kesî girtin û xistin girtîgehê, û bi hezaran kesî di nav gundan de gullebaran kirin, û heya rehm bi jin û biçûk û pîr û kalan jî nekirin.

Di dema komkujiya di Qarnê û Qelatana Nexedê de, celadên rejîmê, melayê gund ku bi hilgirtina Quranê, daxwaz ji wan kir ku dev ji komkujiya xelkê bê guneh berdin, dane ber gulleyan, û piştre jî serjê kirin. Herwisa celadên vê rejîmê, destdirêjiya cinsî kirin ser keç û xortên bê guneh yên xelkê di girtîgehan de.
Lê serbarê wan hemû zulm û zordariyan, wê demê xelkê Kurdistanê berxwedanî dikirin, û qet serê xwe di hemberî wan hovsifetan de netewandin.

Lê mixabin wê demê bi sedema nebûna teknolojiya ragehandinê, hem destanrêsiyên xelkê Kurdistanê bi pêşengiya PDKÎ, û hem jî hovîtiyên rejîma Xomêynî dengvedaneke wisa tunebûn.

Gelê Kurd niha jî şanaziyê bi berxwedana xelkê Kurdistana Rojhilat di wê demê de dike, û rejîma Îranê jî hovtir ji DAÎŞ'ê dibîne.

# *Daxûyaniya PDKÎ bi boneya birêveçûna 8'emîn pilînoma Komîteya Nawendî*






Heştemîn pilînoma Komîteya Nawendî ya PDKÎ, hilbijartî ji hêla Kongireya 15'ê ya PDKÎ ve, roja Şemî 26.07.1393 (18.10.2014)'an bi amadebûna endamên eslî û endamên cihgirê Komîteya Nawendî dest pê kir, û piştî sê rojan karê berdewam roja 28'ê Rezberê (20'ê Octoberê) dawî bi karên xwe anî.

Heştemîn pilînoma Komîteya Nawendî ya PDKÎ, di demekê de bi rêve çû ku çend rojan pêştir semînareke taybet bi nirxandina kar û tekoşîn, siyaset û helwestên PDKÎ di heyama du salên derbazbûyî de, ku pêştir heyeta amadekariyê jêre hatibû diyarîkirin, bi beşdariya endamên rêberî û nûnerên kadr û pêşmergeyan, û hejmarek kesayetiyên siyasî bi rêve çû, û di vê semînarê de boçûn û pêşniyarên beşdaran ji aliyê Heyeta Amadekar ya semînarê ve, bona lêkolîna li ser wan, di pilînomê de ketin ber bas.

Pilînomê bi ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtin ji riha pak ya şehîdên Kurdistanê dest pê kir. Piştî pesendkirina destûra karê pilînomê, sekreterê giştî yê PDKÎ birêz Mistefa Hicrî lêkdaneweyeke giştî li ser pirsên curbicur pêşkêş kir.

Di lêkdaneweya navbirî de, derheq Komara Îslamiya Îranê de, qala vê yekê hatibû kirin ku piştî êrîşa DAÎŞ'ê bo ser Mûsilê, û şikandina hêza Îraqê di vê herêmê de, û dagîrkirina beşek ji welatê Îraqê ji aliyê wan ve, Komara Îslamiya Îranê hewl da ku bi beşdariya xwe di şerê herêmên Mexmûr û azadkirina Amirlî û amadebûna di eniyên şerê Celewla û...hwd de, nifûza xwe di Îraqê de ji berê zêdetir bike, û bandorê li ser pêvajo û pirsên siyasî yên Îraqê, bi kiryar danê, û ji aliyekî din ve jî hewla asayîkirina pêwendiyan digel Erebistanê da, û derfet ji bo Hosiyan pêk anî, da ku ew bikarin di Yemenê de beşdarî deshilatê bin.

Bi vî halî jî dema ku hevalbendiyeke navdewletî li dijî DAÎŞ'ê pêk hat, ku pêşî ji kiryarên dijî mirovane û pêşrewiyên van çekdaran bigrin, beşeke zaf ji endamên vê hevalbendiyê, li dijî beşdariya Komara Îslamiya Îranê di vê hevalbendiyê de bûn.

Di nav van aliyan de, mîrnişînên lêva Kendava Fars, Tirkiye û çend welatên Rojavayî tên dîtin, ku di encam de nehêlan Komara Îslamiya Îranê bikeve nav vê hevalbendiyê de. Ew helwesta bo Komara Îslamiya Îranê weke dûrxistina Komara Îslamî û giringînedan bi wan dihate hesibandin.

Xeynî vê jî bi pêkhatina hikûmeta yekgirtî ya Felestînê, bi serokatiya Mehmûd Ebas, ku hekî bi tewahî ser bigre, nifûza Komara Îslamiya Îranê di vê cihê de jî, wê ber bi aloziyê ve lawaziyê ve here.

Kontirolkirina zêdetir ya sînorên Xezeyê ji aliyê Mîsrê ve, ku derfeta şandina çek û teqemeniyan ji aliyê Komara Îslamî ve bo Xezeyê berteng dike, digel kêmbûna pêwendiyên Sûdanê bi Komara Îslamiya Îranê re, rola vê rejîmê di herêmê de berevajiyê Îraqê kêm dike.

Pêwendiyên Komara Îslamiya Îranê û Tirkiyê jî, bi taybetî piştî razîbûna parlemena Tirkiyê, li derheq dana mafê sînorbezandinê bi hêzên Tirkiyê bona êrîşa bo ser terorîstan û sînorbezandina Sûriye û Îraqê, ber bi aloziyê ve çûye.

Bi kurtî hekî nifûza Komara Îslamiya Îranê di Îraqê de zêdetir bûye, lê di cihên din de ber bi lawaziyê ve çûye. Di beşeke din ya şirovekirina sekreterê giştî de, qala kêşeya etomî ya Komara Îslamî digel welatên 5+1 hatibû kirin, ku heya niha jî, piştî van hemû civînan, her bi vî rengî çaresernekirî mane, û guman jî li ser vê pirograma navikî her di cihê xwe de ye.

Di vê şiroveyê de bas ji zêdebûna rêjeya îdaman û girtin û binçavkirina xelkê, û vê dûrbûna zêde ku ni navbera soz û kiryarên Ruhanî de heye, hate kirin, bi taybetî di warê binpêkirina mafê mirovan û rewşa aborî û jiyana dijwar ya xelkê.

Di warê binpêkirina mafên mirovan di raporê de, bas ji dawî rapora Ehmed Şehîd nûnerê mafê Mirovan ya NY, li ser Îranê û rapora Ban Kî Mûn sekreterê giştî yê NY di vê derheqê de hatibû kirin.

Herwisa di vê lêkdaneweyê de bas ji hilbijartinên Tirkiyê û serkevtina AKP'ê hatibû kirin, û bas ji bandorên vê hilbijartinê htibû kirin, û herwisa bas ji siyaset û helwest û şert û mercên Tirkiyê bo beşdarî di şerê DAÎŞ'ê de hatibû kirin, ku heya radeyekê nîgeranî ji bo rojavayiyan pêk anîbû, lê dîsan jî hêvî hate xwastin ku kêşeyên van dawiyane yên Tirkiyê, û pirsa Kurdistana Rojava, bandora neyînî li ser pêvajoya aştiyê û çareseriya pirsa Kurd nedanê.

Herwisa bas ji rewşa Herêma Kurdistanê û vî şerî hatibû kirin ku berbirûyê wê bûye, û kêşeyên ku Bexdayê bo Herêma Kurdistanê pêk anîne, û bas ji kêşeya zêdetir ji 1.5 milyon awar-

**Dom R: 4**

# Gotûbêja heftenameya Bas digel birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ




**Bas: Dîtina we li ser vê rewşa ku di herêmê de heye çî ye? gelo bi raya we, ew rewş di berjewendiya Herêma Kurdistanê de ye?**

**Bersiv:** Mirov dikare ku bi çend şêweyan vê pirsê şirove bike, ku erênî û hêvîbexş e, bi taybetî ku hate selimandin dema ku DAÎŞ'ê êrîş kire ser Başûrê Kurdistanê, Hikûmeta Herêma Kurdistanê mifayeke baş lê wergirt, bi wergirtina piştevaniya siyasî û navdewletî û navneteweyî, Kurd bû mijareke cîhanî û di rojevê de, û hejmareke zaf ji welatên Ewropayî û cîhanî, derheq piştgiriya ji başûrê Kurdistanê hevgirtî bûn, ji aliyekî din ve derfeteke baş bû ji bo hêza Pêşmerge ya Kurdistanê, ji bo wergirtina çekên pêşkevtî, ji welatên pêşkevtî ên cîhanê, lê digel vê yekê de jî, aliyê nîgatîv ev e ku di navxwe ya Herêma Kurdistanê de tebahî tuneye, em hemû aliyek jî dizanin ku di rewşeke wisa de, hekî yekîtî tunebe, Herêma Kurdistanê nikare di hemberî vê zulma mezin de ku lê tê kirin, xwe rabigre, lewra yekîtî ji bo îro rojê ya Kurdistanê pirr giring e, jiber ku Herêma Kurdistanê kêşeyên xwe bi Bexdayê re çareser nekiriye, û di warê siyasî de jî, digel Îranê hevahengiya di navbera wan de tuneye, Îranê jêve ye ku hebûna vê hikûmeta Kurdî di berjewendiya wê de nine, lewra hewlê dide ku kêşeyan jêre çêke, ji bo vê yekê jî mifahê ji nebûna yekgotariya navxweyî werdigre.

**Bas: Merema we yekgotariya hêzên başûrê Kurdistanê ye?**

**Bersiv:** Belê, yekgotariya partiyan, piştre yekgotariya cemawerî û raya giştî ya navxweyî lê dikeve, ku ew yek jî bandorên erênî zêdetir dike, lê mixabin hindî ku tê, hêzên başûrê Kurdistanê, bedela nêzîkbûna li yektir, dûrketina wan ji yektir zêdetir dibe, ku eva jî aliyekî neyînî ye ku neyarên Kurdan mifayê jê distînin.

**Bas: Ya ku di Herêma Kurdistanê de tê dîtin, parvekirina partiyan e li ser mêhwerbendiyên cîhanî, partî û Goran rû li Rojava, û YNK rû li Îranê kiriye. Gelo heya çi qasekî mêhwerbendiya cîhanî, bandora xwe li ser partiyên Rojhilat jî hebûye?**

**Bersiv:** Ya ku heya niha tê dîtin, partiyên Rojhilata Kurdistanê bi ser du bereyan de nehatine parvekirin, û bernameyên wan zêdetir neteweyî ne, renge di çawaniya gihîştina wan bi mafên neteweyî de, cudahî hebe, partiyên wisa hene ku serxwebûnê dixwazin, yan jî federalîzmê dixwazin, lê her hemû bas ji pirsa neteweyî dikin. Renge di salên borî de veqetiyan di nav partiyan de hebûye, wek ya ku di nav refên Komele û Partiya Demokrat de rû da, lê niha bi sedema rewşa hestiyar, hemû aliyek li ser çend xalên hevpar û pirsa neteweyî, teba ne.

**Bas: Heya çi qasî, di vê rewşa hestiyar de, we pirojeyên erênî hene, yan ji aliyekî din ve serkirdayetiya Kurd li başûrê Kurdistanê bi we re hemşêvrî kirine, da ku rewş bi qazanca Kurdan bi giştî here pêş?**

> **"Di van civînên hevpar yên partiyên Rojhilata Kurdistanê de, çi cihek bo PJAK'ê tuneye"**

**Bersiv:** Di rastî de serkirdayetiya Kurd di başûr de, ti hemşêvriyek bi me re nekirine, lê me pêwendiyên dostane bi wan re hene, bi taybetî digel PDK û Goran û YNK'ê. Di her cihekî de ku em bi hevre rûniştibin , me hewl daye ku em wan nêzîkî hevdu bikin.
Bas: We pêşdestî kiriye?
Bersiv: Pêşdestî ne, lê axavtinên micid û hewce belê.

**Bas: Derheq qewareya beşdariya we di şerê DAÎŞ'ê de çawa, bas ji vê hate kirin ku pêşmergeyên we di çeperên şer de ne, û piştre jî hate gotin ku li ser daxwaza aliyekî diyarîkirî yê Kurdistanê hûn vekişiyabûn, hûn dikarin zanyariyan di vê derheqê de bidin me?**

**Bersiv:** Helwesta me her tim rohn bûye, û me gotiye Herêma Kurdistanê ku hekî we hewcehî bi alîkariya me hebe, eva di her rewşekê de em amade ne bo şer, lê bi mercekê ku hûn razî bin, jiber ku me hertim hez kiriye ku em hêzeke alîkar bin di başûrê Kurdistanê de, ne eva ku em destêwerdanê bikin, eva bû ku daxwaz ji me hate kirin, û me jî hêzên xwe şandin bo çeperên şer, lê piştî heyameke kurt daxwaza vekişiyanê ji me hate kirin.

**Bas: Kê daxwaz kir?**

**Bersiv:** Wî aliyê ku daxwaza alîkariyê kiribû, her wî aliyî jî daxwaz kir ku em hêzên xwe paşve vegerînin, lê bi awayekî fermî em agehdar nînin ku çima ew kar hate kirin, lê bi awayê ne fermî wisa dixûye ku ew daxwaza Îranê bû.

**Bas: Çima nabêjin ku ew alî kî bû?**

**Bersiv:** Jiber ku hewce nake, ew alî di Hikûmeta Herêmê de ye, û me jî her du daxwaz ji wan qebûl kirin, her wek ku me got em hez dikin ku hêzeke alîkar bin di herêmê de, ne hêzeke ku destêwerdanê bikin di herêmê de, û me di vê çarçoveyê de ew daxwaz bi asayî zaniye.

**Bas: Pêşmergeyên we çûne çi eniyekê de, li eniya Celewla yan eniya Mexmûrê. Li Celewla pasdarên Îranê dîtin?**

**Bersiv:** Pêşmergeyên me li mêhwera Mexmûr û Giwêrê bûn, lê hêzên Îranê zaf in di eniyên şer de, ku ji bo armanc û meremên xwe hatine, xeynî pisporên taybetî ku alîkariya hêzên Îraqê dikin, hêzên şerker jî di herêmê de hene.

**Bas: Gelo raya we li ser hêzên YPG'ê çî ye di başûrê Kurdistanê de, di demekê de Kobanê û Rojava di vê rewşê de ye?**

**Bersiv:** Hebûna wan hekî di başûrê Kurdistanê de, li ser daxwaza alîkariya Hikûmeta Herêmê be, eva erkeke niştimanî cîbicî kirine, lê hekî ew bixwe hatibin eva me pê baş nine, û bi dirust nizanin û wek destêwerdan çav lê dikin, jiber ku em naxwazin ku ti hêzeke parçeyeke din, bi bê daxwazkirinê, destêwerdanê di nav parçeyeke din de bike, û nakokiya siyasî lê çê be.

**Bas: Niha bas ji vê tê kirin ku DAÎŞ bi hemû aliyên xwe yên xirap, dawî bizmar li lihevkirina Saykspîko xistiye, ku eva jî di berjewendiya gelê Kurd de ye, hûn li ser vê bawerê ne ku Kurd her wek niha di şerê bi DAÎŞ'ê re berdewam be, yan riyeke din jî heye?**

**Bersiv:** Bi giştî ez di vê baweriyê de nînim ku Kurd her şer bike.

**Bas: Wate hûn danûstandina bi DAÎŞ'ê re asayî dibînin?**

**Bersiv:** Belê, girêdayî ye bi vê ku danûstandin çi tişt têde tê şopandin, hekî Herêma Kurdistan bi DAÎŞ'ê re gotûbêjê bike, da ku şer ji xwe dûr bike, bo xirap e? Di hemû gotûbêjekê



de ya giring eva ye ku tu çi siyasetekê dişopînî, armanc di danûstandinê de giring e.

**Bas: Hekî em herin ser baseke din, û renge vegerin ser vê mijara xwe ya pêşîn, heya çi qasî nexweşketina rêberê Komara Îslamiya Îranê bandorê li ser guherînkariyên wî welatî dadinê?**

**Bersiv:** Ez ne bawer im ku nexweşketina wî bandor hebe, ez bêjim hatiye çareserkirin.
Her çawa Xomeynî mir, Xamineyî jî wê bimire, ya ku di vê hikûmetê de heye, wate sîstem bi hatin û çûna serkirdeyekî guherînkarî di rastaya ber bi pêşveçûna demokrasî û azadiyê pêk nahê, jiber ku ew sîstem li dijî beha û pirensîpên mafên mirovan û azadiyan e, lewra şaş e, hekî me jêve be ku bi mirina Xamineyî guherînkarî pêk bihên.

Renge kesayetiyan heya sînorekê bandora xwe hebin dema ku tênê guherîn, lê bi vî awayî nabe ku hekî sîstem bê guherîn.

**Bas: Gelo çawa ye ku Erdoxan kariye gellek tişan biguhere?**
**Bersiv:** Ya ku di Tirkiyê de heye, demokrasiyetek e, herçend lawaziyê wê jî hene, lê jiber ku heye, rê ji bo guherînkariyan vedike, lê di sîstemeke wek ya Komara Îslamiya Îranê de, ku tu bingeheke demokrasiyê têde nine, kesayetî nikarin guhertineke bingehîn çê bikin.

**Bas: Ku wisa ye, her eva sedema vê ye ku hûn amade nînin bi sîstema niha re gotûbêjê bikin, gelo ti pêşdestiyek ji aliya we, yan ji aliyê wan ve hebûye?**

**Bersiv:** Serdemekê piştî bidawîhatina şerê Îran û Îraqê, Komara Îslamiya Îranê daxwaza danûstandinê ji me kir, da ku ji riya aştiyê ve pirsa Kurd bê çareserkirin, eva bû ku Dr. Qasimlo digel heyeteke Îranê rûnişt, û hate terorkirin, lewra me ti pêşdestiyek nekiriye ji bo civîna bi vê sîstemê re.

Jiber ku li ser vê baweriyê me ku di vê Komarê de mafê Kurd nahê cîbicîkirin û azadî û demokrasî jî desteber nabe.

**Bas: Ku wisa bû hûn çavnihêriya çi dikin, di demekê de ku hûn di rewşa şer de jî nînin ?**

**Bersiv:** Hekî em bi kûrî herin nav xebata gelê Kurd de, Kurd di dîrokê de qet nekariye ku hikûmeta nawendî biguhere, belku amadekarî kiriye bo mifahwergirtina ji derfetê. Herwek ku PDK û YNK, piştî xebateke dûr û dirêj karîn ku ji derfeta hiloşîna Sedam mifayê bistînin, û piştre jî Hikûmeta Herêma Kurdistanê pêk bînin.

**Bas: ku wisa bû ji bo derfetê, we amadekarî kirine?**

**Bersiv:** Belê, em çavnihêrê derfetê ne, û amadekariyeke tewaw di warê pêşmergeyan de me kiriye.

**Bas: Pêştir we bas ji vê kir ku di nav partiyên Rojhilat de, heya sînoreke baş yekgotarî heye, bi taybetî li ser pirsa neteweyî, di vê çarçoveyê de, heya çi qasekî Pijak di nav vê bereya yekgirtî de ye?**

**Bersiv:** PJAK partiyeke serbixwe nine, û beşek e ji PKK. Di vir de partiyeke başûrê Kurdistanê jî nine, belku partiyeke cihek din ya Kurdistanê ye, di van civînên hevpar yên partiyên Rojhilata Kurdistanê de, çi cihek bo PJAK'ê tuneye.

**Bas: Wate hebûna PJAK'ê di berjewendiya Rojhilat de nine?**

**Bersiv:** Me jêve ye ku partiyek di çarçoveya vê beşê de ku pêk hatiye, dikare qazanca xwe hebe.

Em wek partiyeke Rojhilata Kurdistanê, nabe me jêve be ku em dikarin ji partiyên başûrê Kurdistanê, yan her parçeyeke din dilsoztir bin, ku wisa bû bila em îznê bidin ku xelkê van ciyan bixwe biryarê bidin, hekî me daxwaza alîkariyê kir, eva wê demê dibe ku em alîkar bin, ne eva ku destêwerdanê di nav karûbarên siyasî de bikin, em alîkariyê bi erka li ser milên xwe dizanin.

**Bas: Derheq Îranê, çima ew qas pêdagir e li ser dûrkirina DAÎŞ'ê ji xwe, jiber ku naxwaze derfetê ji bo we amade bike?**

**Bersiv:** Îran naxwaze ku DAÎŞ ji nav here, û dixwaze ku wê bihêle, bona vê ku bi qazanca xwe bi kar bîne, jiber ku DAÎŞ serbixwe nine, û ecindaya Îran, Îraq û renge Tirkiyê jî têde hebe, Îran dixwaze ku her tim şer û kêşe hebe, hevdem digel vê jî naxwaze ku Îraq serbixwe be, di vê çarçoveyê de jî rêgiriyê ji derfetên Kurd dike, û berjewendiyên îdeolojî û sîstema xwe diparêze.

**Bas: We got ku Îran ji hebûna şer di herêmê de hez dike, gelo bi raya we Îranê dest hebûye di avakirina DAÎŞ'ê de jî?**

**Bersiv:** Ez di vê baweriyê de nînin ku Îranê DAÎŞ çê kiribe, lê gellek zîrekane dest xistiye nav DAÎŞ'ê, ji riya kesên girêdayî bi Îraq û Sûriyê, ku dikarin bandorê li ser destnîşankirina armancên şerê DAÎŞ'ê hebin, bo mînak piştî vê ku DAÎŞ'ê Mûsil girt, li gorî van îmkanatên ku bi dets xistin, dihate pêşbînîkirin ku ber bi Bexdayê ve here, lê ji nişkêve ber bi Kurdistanê ve hat, jiber ku kesên ser bi Komara Îslamiya Îranê rê didanîne ber wan, jiber ku dixwast ku Herêma Kurdistanê ceza bike,

Doma R: 2

eyan hate kirin. Pilînomê ragehandina amadeyiya PDKÎ di şerê li dijî DAÎŞ'ê de, bo piştevaniya ji Herêma Kurdistanê bilind nirxand, û piştevaniya kêm mînak ya Rojavayiyan ji Herêma Kurdistanê wek xaleke erênî bo herêma Kurdistanê û doza Kurd bi giştî danî. Sûriye û rewşa Kurd di vî welatî de, beşek din ji vê lêkdaneweyê bû, ku di vê derheqê de pilînomê tevî ragehandina piştevaniya xwe ji bo xelkê Kobanê, berxwedana xelk û hêzên berxwedêr li dijî êrîşên DAÎŞ'ê bo ser van herêman, bilind nirxand, û xweragiriya wan hejiyê rêzgirtinê da zanîn, û hêviya vê xwast ku hêzên siyasî yên Kurdistana Rojava di vê rewşa hestiyar de, di hewlên yekgirtina xwe de serkevtî bin.

Bi giştî ew lêkdanewe piştî behs û gengeşeyeke zêde ji aliyê beşdarên pilînomê ve hate dewlemend û pesendkirin.

Beşeke din ya karê pilînomê hatibû danîn bona behs li ser boçûn û pêşniyarên semînarê, û herwis rewşa Kurdistana Îranê, û kar û tekoşîna du salan ya PDKÎ di hemû organên xwe de.

Di vê beşê de tevî îşarekirina bi dirêjiya serkutê û jêhelçûna rêjeya îdaman û zexta li ser çalakên medenî û çawaniya reşwa navxwe, û kar û tekoşîna her yek ji organên PDKÎ bi awayê cuda cuda, bi baldana bi boçûnên beşdarên semînarê, ketin ber bas. Beşdaran tevî giringîdana bi van pêşniyaran, riya dirust û hejî bo wan pêşniyaran destnîşan kirin.

Pilînomê derheq meşên xelkê Rojhilata Kurdistanê, bo piştevaniya ji Kobanê, û şandina alîkariyên mirovî bo awareyên her du parçeyên Kurdistanê li başûr û rojava, bilind nirxand, û ew piştevanî weke nîşana derbirîna hesta neteweyî ya Kurdên rojhilat hesiband, bi taybetî ku rejîmê hewl da van meşan bi qazanca xwe bişkêne, û digel siyasetên xwe hevaheng bike, lê xelkê nehêlan ku ew hewla wan ji riya xwe bê derxistin.

Pilînomê di beşek din ya karê xwe de, çend mijarên pêwendîdar bi erkên hizbî û neteweyî û rewşa opozisyona Îranê û hewcehiya hevxebatiya hêzên siyasî ên Kurdistanê xiste ber bas, û bo her yek ji wan bi taybetmendiyên xwe ve, rasipardeyên hewce destnîşan kirin.
Bi vî awayî piştî sê rojan kar, û bi encamgehandina destûra karê pilînomê, piştînîvroya roja 28'ê Rezberê (20'ê Octoberê) dawî bi karên xwe anî.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**29.07.1393**
**21.10.2014**

ku bas ji serbixweyiyê dikir.

Bi eşkere alîkarê Wezîrê Karê Derve yê îranê, Emîr Ebdullahî ragehand ku ew siyaseta ku Hikûmeta Herêmê girtiye pêş, hekî berdewam be, wê poşman bibe, lê piştre bi siyasetkirin wisa nîşan da ku xema Kurdistanê dixo, û hêz li dijî DAÎŞ'ê anî.

**Bas: Wate bi rohnî, şandina DAÎŞ'ê ber bi Kurdistanê, karê Îranê bû?**
**Bersiv: Bê guman bandora Îranê ji hemû aliyên din zêdetir e.**
**Bas: Gelo di vê rewşê de heya çi astekê kongireya Neteweyî giring e ji bo yekgotariya Kurdan di herêmê de?**

**Bersiv:** Mixabin diviya eva zû ba, lê niha digel dûrketina aliyan, ez wisa nabînim ku bi rêve here, herçend ku hêviya hemû Kurdekî welatperwer e, lê di rastî de pêwendiya aliyan di asta Kongireya Neteweyî de nine, niha li ser danîna parêzgarekê ji bo Silêmaniyê li hev nakin, gelo çawa wê bikarin li ser pirseke wisa mezin li hev bikin.
**Bas: Pêştir hewleke zaf hebû, lê gotin ku PKK dixwaze ku nîvê endamên Kongireya Neteweyî ser bi wê bin, gelo di wê demê de, ew yek hokar nebû bo paşxistina kongireyê?**

**Bersiv:** Belê. Yekem sedem zêdexwaziya PKK'ê bû, ku Kongire paş xist û piştre jî DAÎŞ çê bû, û pêwendiya PDK û PKK'ê ber bi xirapiyê ve çû, ew yek bûne sedem ku bi rêve neçe.

**Bas: Heya çi qasî digel vê yekê ne ku Kurd di Başûr de referandomê bike û dewletê ragehîne?**

**Bersiv:** Niha di Herêma Kurdistanê de îmkana ragehandina dewletê heye, lê berî her tiştî îradeya yekîtiya di navbera xelkê başûrê Kurdistanê de giring e, ku niha ew îrade tuneye, herwisa serbixweyî, wê encamên gellek nîgatîv jî hebin, bo heyameke kurt gemaro wê bikevin ser Herêma Kurdistanê, û wê kêşe jêre çê bin, ew xelkê ku di Kurdistanê de dijîn, divêt ew tab û tehemula wan hebe, û niha jî ew yek nahê dîtin, lewra ew rewşa niha ne baş e bo serbixweyiyê.

**Ev gotûbêj di hejmara roja Sêşem 22.07.1393 (14.10.2014)'an di heftenameya Bas de hatiye bilavkirin ku di Hewlêrê de tê weşandin.**

# *Roja Rojhilat jî, wê bihêt*



Birêz Mihemed Nezîf Qadirî

**"Giringîdan bi xebata medenî û cemawerî ji aliyê partiyên Rojhilata Kurdistanê ve berdewam e, û di vî warî de partî û aliyên siyasî yên vê para kurdistanê rola xwe ya dîrokî dilîzin. Herwisa çalakên medenî di vî warî de bûne hêzek ku haşa lê nahê kirin".**

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê di şerê dasepayî bi ser neteweya Kurd di rojhilata Kurdistanê de, hem şerê cibheyî û hem jî şerê milîtanî li dijî hêzên çekdar ên rejîma Îranê bi rêve biriye, û gellek caran hatiye neçarkirin ku binke û baregehên xwe veguhêze bo aliyê sînoran, û ev veguhastina bûye hêcetek ji bo hinek kes û aliyan, û dibêjin ku bi paşekêşeya hêza pêşmerge ber bi sînoran, şoreş û xebat di rojhilata Kurdistanê de lawaz bûye, û yan jî bandora wê kêm bûye.

Herwisa li derheq şêweyên xebatê û mifahwergirtin ji derfetan, di dîroka siyasî ya xebata neteweya Kurd de, rêzdar Mihemednezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ, bi vî awayî boçûna xwe bas dike: "Bi nirxandin û lêkolîneke hûr li ser rewşa Rojhilata Kurdistanê, tevgera mafxwazane ya gelê Kurd ew rastiya selimandiye ku hilbijartina her şêwazek ji xebat û berxwedanê, vedigere bo wan derfetên ku ji bo xortên xebatkar pêk tê.

Ezmûna şoreşa Kurd li başûrê Kurdistanê, di gel deshilata nawendî, tejî ye ji ceribandina metodên xebatê. Herwisa reftara dijî Kurd ya deshilatdarên Sûriyê jî, ji ti kesî veşartî nine.

Her piştî şoreşa gelên Îranê, xelkê Kurdistana Îranê bona çareserkirina daxwaziyên xwe bi awayekî medenî, ji riya xwenîşandanan, û girevgirtinê hatin ser kolanan, û daxwaza mafê xwe yê neteweyî kirin.

Herwisa birêveçûna gireva giştî di van çend salên dawiyê de, di roja 22'ê Pûşperê (13'ê Juenê, salvegera şehîdkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî) de, û gireva giştî ya di roja 23'ê Banemera 1389 (meha Gulana 2010)'an de, li dijî bidarvekirina çar xebatkarên Kurd, û hatina ser kolanan ya xelkê rojhilata Kurdistanê di xweşî û nexweşiyên Kurdên başûrê Kurdistanê, û Kurdên Rojavayê Kurdistanê, mînaka herî berçav ya xebata medenî ya xelkê rojhilata Kurdistanê ye".

Derheq xebata medenî û pêşwazîkirina xelkê rojhilata Kurdistanê ji banga PDKÎ, birêz Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ bi vî awayî bersiva me da: "Diyare ku dema em bas ji xebata medenî di rojhilata Kurdistanê de dikin, eva cudahî heye di gel xebata medenî di welatekî demokratîk yan nîve demokratîk de, jiber ku di Îranê de, kêmtirîm nerizayetî jî, bi agir û asin û gulleyan, û îşkence û zindanê tê bersivdan.

Lê bi vî halî jî xelkê rojhilata Kurdistanê ji her derfetekê mifah standine da ku raya giştî û deshilatdarên rejîma Îranê ji daxwaziyên xwe agehdar bikin. Di vî warî de jî bê guman PDKÎ bandora xwe hebûye. Bo mînak li salvegera şehîdkirina Dr. Qasimlo de, li ser daxwaza PDKÎ, beşek zaf ji xekê dukan û bazar dadixistin û çalakiyên curbicur bi rêve dibirin, yan jî di van rojên dawiyê de me dît ku xelkê rojhilata Kurdistanê bona piştevanîkirina ji xelkê Kobanê hatin ser şeqaman, û herçend ku rejîmê xwast ku ew li gorî hezkirina wan meşa xwe bi rêve bibin, lê xelkê diruşmên silav li Qasimlo, mirin bo dîktator û neman bo terorîzmê qîriyan. Eva nîşan dide ku PDKÎ bandora xwe bi ser rojhilata Kurdistanê de heye".

Herwisa li derheq axavtinên wan kesên ku bas ji vê kirine ku PDKÎ çavnihêrê bûyeran e, û PDKÎ rexne kirine, birêz Mihemednezîf Qadirî bi vî rengî bersiv da: "Giringîdan bi xebata medenî û cemawerî ji aliyê partiyên rojhilata Kurdistanê ve berdewam e, û di vî warî de partî û aliyên siyasî yên vê para kurdistanê rola xwe ya dîrokî dilîzin.

Herwisa çalakên medenî di vî warî de bûne hêzek ku haşa lê nahê kirin. Di dîroka tevgera rizgarîxwaziya gelê Kurd de, PDKÎ rola xwe hebûye, û di her qonaxek ji xebat bo mafê neteweyî de, wek faktereke serbixwe kar kiriye û bi piştqahîmiya bi vê hêza xwe ya serbixwe bernameya kar û şêwaza xebat, û siyaseta xwe darêtiye.

Her li ser vê rêrewê jî, xebata xwe didomîne, û pêrewiyê ji siyasetekê dike ku di berjewendiya xelkê rojhilata Kurdistanê, û ber bi pêşveçûna siyasetên PDKÎ de be. Di vê rewşa hestiyar de jî, dibe ku diyarîkirina her şêwazek ji xebatê, di berjewendiya xelkê rojhilata Kurdistanê de be".

Di kelekela şer û berxwedana di Kobanê de, li ser daxwaza PDKÎ û çalakên medenî û aliyên siyasî ên Kurdistanê, xelkê Kurdistana rojhilat di piraniya bajaran de hatin ser şeqaman, û kar û kiryarên DAÎŞ'ê û piştevanên wê, şermezar kirin, û bi vî rengî piştevanî ji xelkê Kobanê kirin. Li derheq ew

Dom R: 7

# Fîlma “Çi”...

Ew fîlma ji aliyê kesekî ve hatiye berhemanîn ku hemû jiyana xwe li ser çêkirina komek fîlmên kilîşeyî û leşkerî li ser bûyerên Îranê daniye. Bi taybetî li ser çeperên şerê bi Îraqê re, û li ser jiyan û derbazkirina pasdaran piştî bidawîhatina şer û dûrketina wan ji bazineya deshilatê, lewra Îbrahîm Hatemîkiya nivîskar û derhînerê vê fîlmê bi baweriya piraniya şarezayan û karnasên sînemayê, yek ji kirêgirtiyên ser bi Spaha Pasdaran e, ku berdewam ji bo geşepêdana rol û destêwerdana hêzên serkutkar ên Spaha Pasdaran di bazineyên curbicur ên civakê de hewlê dide, û bîrokeya ne rind a Spaha Pasdaran bo deshilatdarî û zalbûna bi ser xelkê de ji riya sînemayê ve tîne nav civakê.

Renge hinek kes bi bihîstina navê Îbrahîm Hatemîkiya wisa bifikirin ku ew kesa yek ji derhînerên herî xwedî şiyan ê sînemaya Îranê ye, û bi vê mereemê jî navê du fîlmên “Ajansê Şîşêî” (Ajansa bi şûşe), û “Êrtifaê Pest” (Bilindahiya bê çine), wek mînak tîne, ku di rastî de ew du fîlmane jî, bi awayekî pilandarêtî ji bo lêdana hêzên dijî Komara Îslamiya Îranê û Spaha Pasdaran hatine çêkirin.

Lê Hatemîkiya di fîlma “Çi” de, rûçikê rastîn yê xwe, û xweşxizmetîkirin bi Komara Îslamiya Îranê û Spaha Pasdaran nîşan dide, û her di detspêkê de, bi berevajîkirina rastiyan û ji rê derxistina rastiyan hewlê dide ku tawana teyisandina şer bixe stûyê hêzên azadîxwaz, û bi vî awayî xwe di hemû tawanên dijî mirovatiyê de, ku li dijî xelkê Pawe bi rêve birin, bê sûç nîşan bidin.

Di vê fîlmê de bi eşkereyî xuya dike ku rêjîm her di destpêkê de, bi pêkanîna ajawegerî û têkdana têkiliyên di navbera Hewramî û Soraniyên akinciyê Pawe, di hizra çandina tovê hizr û bîra heman doktorîna “nakokiyan çê bike, û deshilatdariyê bike” de ye.

Di vê fîlmê de jî weke fîlma Şûrê Şîrîn (hezek Şîrîn), Kurd wek hêzeke serbirr û talançî tê berçav, ku emanê nadin xelkê Pawe. Xeynî vê yekê derhînerê vê fîlmê jî, dîsan bi mifahwergirtina ji komek kêşeyên demserveçûyî hemû şiyana xwe bi kar tîne ku bi hinek tirokajên sînemayî yên di sînemaya ekşên ya Halîwûdê de, bala bîner bo aliyê xwe rakêşe, û gellek çewaşekarane, rûçikekê ji Çemran nîşan bide ku ji bo azadî û rizgariya neteweyan hewlê dide.

Helbet wisa dixûye ku Hatemîkiya bixwe jî wek hevşêweya hevbîrên xwe, bawerî bi têgeha netewe tuneye, û di vê fîlmê de, Çemran qet bas ji netewebûna Kurd nake, û zêdetir ji kanala ola Şîe ve bas ji toxm û regeza mirovan dike.

Lewra Hatemîkiya hewlê dide ku vî rûçikê xwînrêj ji Çemran bistîne, û di cihê nîşandana rûçikê rastîn yê Çemran, kesekî aştîxwaz ji wî nîşan bide, lewra çendîn caran ji zarê kesayetiya Çemran ve em guhdarê vê diyalogê ne ku “Em ji bo şer nehatine...em li ser daxwaza xelkê Pawe, ji bo alîkariyê hatine”.

Pirsek din ku di vê mijarê de cihê basê ye, boxtankirina li xebata rewa ya neteweya me ye, ku berdewam karbidestên Komara Îslamiya Îranê, û darûdesteyên wan wek Îbrahîm Hatemîkiya hewlê didin ku wisa bi bîrûraya giştî biselimînin ku şoreşên Kurd ne tenê encama xwestek û daxwaziyên Kurdan e, belkû berhema palpiştiya hêzeke bîhanî ye, lewra bi eşkereyî di vê fîlmê de ev tewera berçav dikeve, û ji zarê Çemran ve, di gotûbêja digel kesayetiyeke ne rohn û xeyalî bi navê Dr. Enayetî de, tê baskirin ku “Bûyê Îsraîl bi meşamem mîresed” (bêhna Îsraîlê tê min).

Lê rastiyek di vê fîlmê de xwe nîşan dide, ku ew jî eva ye ku Çemran û ew kesên din ku bi hêceta danûstandin û gotûbêjan hatibûn bo bajarê Pawe, tenê bi armanca amadekariyan hatibûne wî bajarî, û qet di bîra aştî û gotûbêjê de nebûn, lewra dema ku yek ji pasdarên rejîmê êrîş dike ser Tîmsar Felahî, Çemran di bersivê de dibêje: “Em ji bo lêkolîna li ser rewşê hatine”, û rast her wisa ye jî, jiber ku piştî vê ku Çemran û Felahî rewşê lêkolîn dikin, daxwaza alîkariyan û biryara Cîhadê ji Xomeynî dikin, û piştî vê ku ew dikarin bi awayê herî baş demê ji xwe re bi dest bixin, Xomêynî di roja 28.05.1358 (Tebaxa sala 1979)’an de, biryara cîhadê li dijî gelê Kurd der dike, û bi êrîşa hêzên serkutkar şîpelên xwînê di Pawe de rê dixin, û bi hêceta şer li dijî kofrê dest bi tawanên herî hovane li dijî mirovahiyê dikin.

Armancên berhemanîna van cure fîlman çi ne:

1-Ev fîlmane, û komek fîlmên din, di heftiya bi navê “Difaê Muqedes” (bergiriya pîroz) de, di



Beşa 2

çarçoveya pirogrameke televîzyonî bi navê “Ceşnwarêyê fîlmhayê Difaê Muqedes”,(festîvala fîlmên bergiriya pîroz) de, li ser şaşeya fermî ya Saziya Dengûreng a Komara Îslamiya Îranê hate bilavkirin, ku ne tenê nekarî xizmetê bi vê saziyê bike, belkû bû sedema eşkerekirina nerizayetiya xûşk û birayên me yên Kurd ji pîr û ciwan û xwendekar û ...hwd.

Bilavkirina van cure fîlman di bin navên bi vî awayî de, nîşana vê rastiyê ye ku Komara Îslamî dixwaze bêje xelkê berdengê xwe, ku hêzên Kurdî êrîşkar û pêşengê şer bûn, lê em hemû dizanin û dîrokê jî selimandiye ku tu carî, tu hêzeke rizgarîxwaz a Kurd û li serveyî hemiyan PDKÎ, çeka ji bo êrîşê hilnegirtiye, belkû çek encama daxistina deriyên gotûbêjê bûye, û di rastî de ji bo berevaniyê hatiye hilgirtin.

Di demekê de ku karbidestên Komara Îslamiya Îranê û spahiyên di Saziya Dengûreng a Îranê de, di hewla vê yekê de ne ku êrîşa hovane ya xwe bo ser Kurdistanê, di çarçoveya berevaniya bi nav pîroz di bîr û hizra xelkê xwe de cih bikin.

2- Komara Îslamiya Îranê ji mêjdem e ku hewlê dide, bi berhemanîna van fîlmên sivik xebata rewa ya neteweya me bibe jêr pirsyarê, û ji riya kirêtnîşandanan, û berevajîkirina rastiyan, hêcetan bo tawanên xwe bîne, lê bi baldan bi rûçikê rastîn yê karbidestên vê sîstemê, tu carî nikarin bigihîjin vê armanca xwe, û ne tenê berhemanîna van fîlman xizmeta wan nake, belkû dibe hêvinê nerizayetiyên xelkê, û piştqahîmiya zêdetir bi hêzên rizgarîxwaz.

Lewra em dibînin dema ku ew fîlm ji Saziya Dengûreng ya Komara Îslamî de bilav dibin, xelkê Kurd li ser torên civakî, bi yekdengî van kiryarên rejîmê şermezar dikin û wek kiryareke sivik dihesibînin.

3- Komara Îslamiya Îranê baş dizane



**Fatih Salihî**

ku PDKÎ çi pêgeheke kûr û ji mêjîn di nav xelkê de heye, û Komara Îslamî bi dirêjahiya 36 sal temenê reş û biyom yê deshilatdariya xwe, ti carî nekariye ku vê reh û rîşeya dîrokî hişik bike, lewra bi hemû hêz û şiyana xwe hewlê dide ku ji bo xapandina nivşa nû fîlmeke bi vî rengî berhem bîne, ku hem ji aliyekî ve qehremansaziyê ji wan re bike, û ji aliyekî din ve jî ciwanên Kurd ji ducarîbûna van bûyeran bitirsîne.

Lê bi eşkereyî em dikarin bêjin ku di navbera deshilatdaran û nivşên çarem û pêncem ên paş şoreşa gelên Îranê de, valahiyeke wisa pêk hat ku ne tenê sînemaya Komara Îslamî, belkû sînemayên Halîwûd û Balîwûd jî nikarin vê valahiyê tijî bikin, û rejîm qet nikare bi berhemanîna van cure fîaman xelkê bo aliyê xwe rakêşe.

4- Komara Îslamiya Îranê ne tenê ji riya berhemanîna van fîlman ve, belkû ji riya çêkirina komek fîlm û dekomentên pirr ji direv ên din, hewla vê yekê daye ku li dijî hêzên rizgarîxwaz, û li dijî PDKÎ di nav kom û kombûnên cîhanî ên mirovdost de belgesaziyê bike, û rûçikek terorîstane ji hêza Kurd nîşan bide, û ji vê riyê ve nîşanî cîhanê bide ku goriyê sereke yê terorê, û karbidestên rejîmê ye, bê xeber ji vê ku rûçikê rasteqîne yên vê rejîmê ji bo hemû aliyekî rohn bûye, û rejîm bi vî karî jî nikare ku rastiyan berevajî nîşan bide, û xebata rizgarîxwazane ya neteweya Kurd kirêt nîşan bide.

# Nerîna Lîderan



Mistefa Hicrî:

**PJAK'ê ti cihek di nav civînên partiyên Rojhilata Kurdistanê de tuneye".**



Salih Muslim:

**"Dema em di bin'erdê de dihatin îşkencekirin, Erdoxan bi Esed re, li ser sifikekê nan dixwar".**



Dîk Çênî:

**"Çekên nuklerî dikarin bikevin destê DAÎŞ'ê de".**



Manuel Valls:

**"Fransa piştgiriyê dide pêşniyara Tirkiyeyê ya herêmek tampon li Sûriyê".**



Birêz Teymûr Mistefayî

**"Eva ku carna ji zimanê hinek kesan ve em dibihîzin ku şoreş di Rojhilata Kurdistanê de sekiniye, yan bandora wê nemaye, cihê heyrîmanê ye. Bi baweriya min ew kesane ji bo berjewendiya xwe, û razîkirina Komara Îslamiya Îranê, amade ne ku şoreşa Kurdistana Îranê bi vê hemû derbazbûyiya zêrîn, bikin goriyê siyasetên xwe yên şaş.**

kesên ku dibêjin di rojhilata Kurdistanê de şoreş sekiniye, yan jî nemaye, birêz Teymûr Mistefayî bi vî awayî bersiva wan da: "Eva ku carna ji zimanê hinek kesan ve em dibihîzin ku şoreş di rojhilata Kurdistanê de sekiniye, yan bandora wê nemaye, cihê heyrîmanê ye.

Bi baweriya min ew kesane ji bo berjewendiya xwe, û razîkirina Komara Îslamiya Îranê, amade ne ku şoreşa Kurdistana Îranê bi vê hemû derbazbûyiya zêrîn, bikin goriyê siyasetên xwe yên şaş. Hekî ne, çawa ew bandora şoreşa rojhilata Kurdistanê nabînin.

Eva di demekê de ye ku Wezîrê Îtilaata Îranê bas ji rastiya hebûna şoreşê di Kurdistana rojhilat û badora wê kiriye, û hewldanên xwe ji bo kêmkirina bandora wan hêzan neveşartiye.

Di dawî meşa piştevaniya xelkê rojhilata Kurdistanê ji berxwedana Kobanê de, bilindkirina diruşmên weke "Kobanê Kurdistan e, Demokrat rêberê me ye", û "DAÎŞ dijî Kurdan e, hevpeymanê Tehranê ye", ji aliyê xelkê ve, nîşana şikesta siyaseta helandina Kurdan ji aliyê rejîmê ve bû, û bersivek jî bû, ji bo yên ku dixwazin bi bêjingê pêşiya rojê bigrin".

Xelkê rojhilata Kurdistanê bi dehan carên din jî, li ser banga PDKÎ û hêz û aliyên din ên siyasî bona piştevanî ji Kurdên parçeyên din hatine ser şeqaman û gellek caran jî berbirûyê girtin û îşkenceyê jî bûne, û heya gulle bi ser wan de hatiye barandin û hatine birîndar û şehîdkirin jî. Kûrbûna pirsa şunasê di Kurdistana Îranê de, tenê girêdayî van salên dawiyê nine, belkû eva pirsek dîrokî ye.

Lê di van salên dawiyê de bi hinek sedeman ew pirs û hesta neteweyî û asta xwestek û daxwaziyên xelkê Kurdistanê roj li pey rojê zêdetir bûye. Lewra kûrbûna pirsa Kurd, nîşana hebûna şoreşê û berdewamiya xebatê di rojhilata Kurdistanê de ye.

Bi giştî neteweya Kurd di Kurdistana Îranê de, di her rewşekê de, şêwazên xebata xwe, bixwe diyarî dike. Lewra nasîna rast û dirust ya derfetan û destnîşankirina şêwaza xebata li gorî wan derfetan bona pêşveçûna pêvajoya xebatê di Kurdistana Îranê de, ji siyasetên rastbînane yên PDKÎ bûne.

Di dawiyê de gelo şik û gumana vê yekê maye ku kes yan kesanek bi qestî û bi zanebûn, yan jî, ji bo razîkirina Komara Îslamiya Îranê, bêjin şoreş û xebat di rojhilata Kurdistanê de nemaye? Di demekê de ku rojane bi dehan kesî ji çalakên siyasî û çandî, berbirûyê girtin, îşkence û îdamê dibin. Şoreşek niha di Kurdistana Îranê de heye, ku vê şoreş û xebatê, neteweyên din yên Îranê jî, ji bo daxwazkirina xwestek û daxwaziyên neteweyî rakiriye ser piyan.

# Bîreweriyên çend pêşmergeyên kevnar yên PDKÎ



**Kerîm Qelatî:**

“Roja cejna Qurbanê bû, du pêşmerge hatin û gotin gelo we nezaniye ku teqe ji Dr. Qasimlo hatiye kirin, û mixabin birîndar jî bûye? Piştre berpirsyarê baregehê hat û got xwe nigeran nekin û birînên Dr. Qasimlo ne giran in. Mixabin her êvariya wê rojê, xebera şahîdketina Dr. Qasimlo belav bû”.



**Ehmed Bîlal:**

“ Me ji RDKÎ gudarî dikir, dema ku RDKÎ nûçeya şehîdketina Dr. Qasimlo belav kir, çaydana çayê ji destê xwediyê malê ket xwar, û got êdî PDKÎ piştî nemana Qasimlo namîne, min jî di bersiva wî de got, jiber ku Dr. Qasimlo em perwerde kirine, PDKÎ wê her bimîne”.



**Resûl Donexor:**

“Roja cejna Qurbanê ez pêşmergê beşa parastina girtîgeha PDKÎ bûm. Girtîgeha me jî li Cawkanê bû, roja cejnê bû û em pir keyfxweş bûn, lê ji nişkêve RDKÎ nûçeya şehîdketina Dr. Qasimlo belav kir, cejn û şahiya me bûye girîn û şîn, eva roja herî nexweş a jiyana min e, û di rastî de, heya roja dimirim, wê rojê ji bîr nakim”.



**Ebdullah Rehîmî:**

“Ji tirsa vê ku Dr. Qasimlo piştîna min ya reş nebîne, heya piştî rêûresmê jî ku bo wênegirtinê em derketin derve, min zincîra kapşînê xwe heya bin çena xwe kêşabû”.



**Se’dûn Şerîfî:**

“Gellek gotin ku Dr. Qasimlo! Dibe cenabê te, li aliyê serî rûnê, lê Dr. Qasimlo di bersivê de got ku hûn destanrêsiya diafrînin, hûn cangorîtiyan dikin, û ez bi hebûna we Dr. Qasimlo me, lewra aliyê serî hertim cihê we ye”.

**Husên Şokrî:**

“Di navbera riya Mehabad û Bokanê bi demançeya hizbê û nameya sergord Ebasî ve ez hatim girtin, ku wê demê jî renge ez bihatibam îdamkirin, lê alîkariya hevekî bû sedem ku hukmê îdamê ji min re nehate birîn”.





# Roja cîhanî ya nûciwan

**"Di Îranê de jî, dibe em vê rastiyê qebûl bikin ku heya sîstmeke demokratîk nehê damezirandin, rewşa nûciwanan her wisa wê aloz bimîne, û nûciwan di Îranê de nabin xwediyê ti mafekê, û nikarin ji pêşketinên cîhana îro mifayê bistînin".**

**Îdrîs Stwet**

Ev roja di cîhanê da, bo vê hatiye diyarîkirin ku kesên mezin bi xasmanî malbat û mamosta û berpirsyarên her civakekê giringiyek zaftir bi nûciwanan bidin.

Nûciwanên îro bi mifahwergirtin ji alavên modêrn ên pêwendîkirinê bi hêsanî dikarin tevî hemû cîhanê pêwendiyê bigrin, û di vê pêwendiyê de rêkxirawên mirovdost pêşniyara wê dikin ku ji vê alava pêwendîkirina bi hêz, bo birine ser a zanyariyan, û bo çalakî û bo xizmetkirina bi cîhaneke mirovdost mifahê wergirin.

Lê serbarê vê ku Cîhan û têknolojî roj tevî rojê di ber bi pêşveçûnê de ye, lê cîhan tijî ye ji ne wekhevî, bê edaletî, ferq û cudahîdanîn, û digellek welatên cîhanê de nûciwan dibine gorî, û bi xasmanî di welatên Rojhilata Navîn de, ku gorepana milmilanê, koçberî, kuştin, û xwînrijînê ye, û pêşeroja nûciwanan di vê deverê de nediyare.

Her çi qas ku nûciwanên vê deverê ji nûciwanên welatên pêşketî yên cîhanê kêmtir nînin, lê warê siyasî yên welatên vê deverê bi qasekê aloz e, ku zaf nûciwan bi hejarî jiyana xwe derbaz dikin, û nikarin şiyanên xwe û encama şiyanên xwe nîşan bidin, û em dikarin bêjin ku nûciwan di vê deverê de zirarmendtirîn texa civakê ne.

Di Îranê de jî, dibe em vê rastiyê qebûl bikin ku heya sîstmeke demokratîk nehê damezirandin, rewşa nûciwanan her wisa wê aloz bimîne, û nûciwan di Îranê de nabin xwediyê ti mafekê, û nikarin ji pêşketinên cîhana îro mifayê bistînin.

Di vê navberê de ku kurdistan ketiye nava vê qeyran û tirafîkê de, ku niha di rojevê de ye, pêşeroja nûciwanan ne diyar e, û bi xasmanî di kurdistana Îranê de, her ji destpêka hatine serkar a vê rejîmê ve, ku sîstemek ne demokratîk û serberedayî bi ser de zal bûye, rewşa nûciwanan di kupika qeyranê de ye, û rewş hinde aloz e, ku nahê zanîn ku pêşeroja nûciwanan ber bi tu aliyekê ve diçe, û dê çi bi serê wan bihê.

Em pîrozbahiya vê rojê ji hemû nûciwanên kurdistan û cîhanê dikin, û hêvîdar in ku ev roja bibe sedema yekrêzî û yekdengiya hemû civakên cîhanê, û bi xasmanî civaka kurdistanê.



# Dînar bi kurdî derdikeve

Hewlêr (Rûdaw)- Sala bê 50 hezar Dînarê Îraqî, dê bi zimanê Kurdî, Erebî û Îngilîzî derbikeve.

Parlamenterê Kurd ê di Parlamentoya Îraqê de pêşniyar da, da ku Banka Navendî ya Îraqê li ser Dînarên Îraqê, bi kurdî jî binivîsin.

Endama Encûmana Aboriya Parlamentoya Îraqê Necibe Necib, ragihand ku Serokê Banka Navendî ya Îraqê gotiyê pêwîst e kurdî li ser Dînarên Îraqê hebe.



# Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri̇̂**

Kesên bi namûs ne ji ronahiyê, ne jî ji tarîtiyê ditirsin.

**Thomas Fuller**

Nefret jî mîna evîna rastîn roj bi roj gurr dibe.

**Balzac**

Mirov ji deyndarên xwe nefret dike.

**Arthur Miller**

Ger çavên evînê kor be, çavên nefretê kortir e.

**La Rochefoucauld**

Yek tişt heye ku mirovan bi aqil dike, ew jî nefret e.

**Albert Camus**

Nefreta ku vekirî tête nîşandan, firsenda tolhilanînê nahêle.

**Seneca**

Ji ber dilxerabiyê, mirovê dilxerab dikare hezkiriya xwe bikuje, lê jê nefretkirin ne mumkun e.

**Henry Fielding**

# Ji bo dersa kurdî pirtûka “Rêzimana Kurmnacî” derket

Wan (Rûdaw)- Nivîskarê kurd ê bi navê Nezîr Ocek ku 12 sal in dersa wêje û zimanê kurdî dide, pirtûkek bi navê “Rêzimana Kurmancî” amade kiriye.

Cudabûna vê pirtûkê ji yên ew ku ev pirtûk ji bo dersa kurdî ya li dibistanan hatiye amadekirin û zimanê wê jî zelal û safî ye. Mînakên pirtûkê piranî ji klasîkên wêjaya kurdî û gotinên pêşiyan hatine wergirtin.

Nivîskarê pirtûkê Nezîr Ocek ji Rûdawê re ragihand ku piştî ku pirtûka wî derket Zanîngeha Mûşê ew pirtûk di Beşa Kurdolojiyê de weke pirtûka dersê bi kar anî.

Ocek di derheqê xebatên pirtûka xwe de jî wiha got: “Zêdetirî 12 salan e ez dersa wêje û zimanê kurdî didim. Min li dibistanan kêmasiya pirtûka kurdî dît. Paşê jî min ev pirtûk amade kir. Zanîngeha Mûşê li beşa Kurdolojiyê pirtûka min bi kar anî, ev yek jî dide xûyakirin ku me xebatek baş kiriye”.

Nezîr Ocek herwiha got ku piraniya mînakên xwe ji berhemên nivîskarên kurd weke Ehmedê Xanî, Melayê Cizîrî, Axaokê Bêderî, Feqiyê Teyran, Baba Tahirê Uryan, Elî Herîrî, Pertew Begê Hekarî wergirtiye.

Pirtûk meha Îlona îsal û ji aliyê Weşanxaneya Sîtavê ve hatiye çapkirin û ji 320 rûpelan pêk tê.




# Fîlmeke Kurdî nûneratiya sînemaya Îraqê li Oskarê dike



Îraqê bona pişikdariya di 87’mîn rêûresma xelatên sînemayî yên Oskarê, fîlma “Merdan” bi derhîneriya Behtîn Qubadî da nasîn.

Fîlma “Merdan” serpêhatiya Efserekê ye ku di zarokatiya xwe de bi sedema bûyerek tal û dilgiran, tûşî xemokiyê dibe, û di çiya û dol û xwezaya hov a Kurdistanê de li pey armanca xwe ya vindabûyî, digere.

Behtîn Quwbadî yê 35 salî, birayê Behmen Qubadî derhînerê navdar ê Kurd e, ku li Rojhilata Kurdistanê û li bajarê Banê hatiye dinê.

# Zimanê Kurdî

Unîteya **3.** Xwendingeh û Jîngeha Min

Ez di dersa werzişê de bi topê dilîzim.





Em dersa xwe ya fenê li laboratiwarê dikin.

Ez di dersa muzîkê de stranan dibêjim.



**Beşa 3.** Dema nivîsînê

## Valahiyên jêrîn dagirin

Mijara jimareyan di dersa.......................................................de tê hînkirin.

Ez zimanê xwe di dersa...........................................................de hîn dibim.

Mijarên çandî di dersa.............................................................de tên hînkirin.

Jiyana pêxemberan di dersa....................................................de tê hînkirin.

Stran di dersa...........................................................................de tên hînkirin.

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Tiştekî min heye, her tim li mal e, geh şirîne geh tal e.
- Dernakeve ji mal e, him ciwan e, him kal e, geh şûr e, geh mertal e
- Şirîn e wekî şekirê, tal e wekî jehrê.
- Odek şûştî, bilbilek tê da rûniştî.
- Ji jehrê taltir e, ji hingivînî şirîntir e.

2- Tebeka li ser t`ebekê, ji nav da marê gezekê, di ser da konên rûvî ya, di ser da çirayên zerî ya. Tbeka li ser t`ebekê, di nav da marê gezekê, di ser da Konên rûvî ya, di ser da çirayên nebiya, di serda dehlên hûta.

3- Odek şûştî, rêzek zilam lê rûniştî.
- Sêniya can, tijî mercan.
- Çome şikeftekê hemî tat bûn, tatekê wilo tune bû nivêjê li ser bikim.
- 32 di qutin, êk didete ber.
- Şikeftuk e, pirr berduk e.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

- Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (240)


## Bajarên herî kevn ên cîhanê

1- Varanasî, Hindûstan (100 sal berî Zayînê).

2-Kadîz, Îspaniya (1100 sal berî Zayînê).

3-Tibis, Yûnan (1400 sal berî Zayînê).

4-Larnaka, Qibris (1400 sal berî Zayînê).

5-Atin, Yûnan (1400 sal berî Zayînê).

6- Balix, Efxanistan (1500 sal berî Zayînê).

7- Kerkûk, Kurdistan (2200 sal berî Zayînê).

8- Hewlêr, Kurdistan (2300 sal berî Zayînê).

9-Sûr, Lubnan (…sal berî Zayînê).

10- Quds, Felestîn (2800 sal berî Zayînê).

11- Beyrût, Lubnan (300 sal berî Zayînê).

12- Xazî Entab, Tirkiye (3650 sal berî Zayînê).

13- Pilodîv. Bolxaristan (4000 sal berî Zayînê).

14- Seyda, Lubnan (4000 sal berî Zayînê).

15- Feyyom, Mîsr (4000 sal berî Zayînê).

16-Şûş, Îran (4200 sal berî Zayînê).

17- Dîmeşq, Sûriye,(4300 sal berî Zayînê).

18-Heleb, Sûriye (4300 sal berî Zayînê).

19-Cibeyl, Lubnan (5000 sal berî Zayînê).

20-Erîha, Felestîn (9000 sal berî Zayînê).

Çavkanî:
Telegraph











## 150 zarokên Êzîdî ji birçbûnê mirin!



Yekîtiya Şaredariyên Bakurê Kurdistanê ragihand ku ji birçbûnê 150 zarokên êzîdî mirin.

Yekîtiya Şaredariyên Bakurê Kurdistanê bi navê "Rapora Krîza Mirovên Rojhilata Navîn" li ser mijara krîza mirovên li Şingal, Mexmûr û Kobanê berbirûyê êrîşên rêxistina Dewleta Îslamî li Îraq û Şamê (DAIŞ) mayîn, raportek bilav kirin.

Di raporê de hat diyar kirin ku êrîşên rêxistina DAÎŞ'ê bandorek xirab li gelê Kurd, Suryanî, Şîî, Tirkmen û keldaniyan kiriye, û hat gotin ji 15'ê Îlona îsal heta niha 500 hezar kes mecbûr bûn ku malên xwe bi cih bihêlin.

Penaber li Bakurê Kurdistanê, di 30 herêmên cuda de hatine bicihkirin.
Li gorî raporê ji wan kesên ji bo êrîşên rêxistina DAÎŞ'ê, xwe parastin çiyayê Şingalê, 150 zarok ji birçîbûnê mirin, bi sedan jin rastî destdirêjiya endamên DAÎŞ'ê hatin, û bi dehan jin jî ji ber ku nekevin destê rêxistinê de xwe kuştin.

## Kantonên Rojava bi fermî hatin nasîn



**Parlemênta Herêma Kurdistanê bi dengê erê ya tevahiya endaman, serbarê piştevanî ji îrade û berxwedana gelê Kurd li Sûriyê, her sê kantonên Rojavayê Kurdistanê bi fermî nas kirin.**

Piştî du civînên cuda derheq bi Kurdistana Rojava û rewşa Kobanê ku di rojên 13-15.10.2014'an hatin lidarxistin, parlemêntoya Kurdistanê di daxuyaniyekê de, du biryarên xwe di vê derheqê de eşkere kirin.

Biryara yekemîn piştevaniya parlemênta Kurdistanê ji îradeya gelê Kurd li Rojavayê Kurdistanê û şeweya xwerêveberiya wan e, û dibêje ku hewce ye bi fermî riftarê tevî wan kantonan bikin, û ya duyemîn jî ev e ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê li gorî şiyanên xwe ên darayî, alîkarî û piştevaniya darayî ji Kurdistana Rojava bike.